# Nerîna Lîderan



Demîrtaş: **"Hekî dewleta DAÎŞ'ê ava bibe, Tirkiye dê dewleta DAÎŞ'ê qebûl bike".**



Mûşe Yel'ûn: **"Rejîma Îranê bo şerê Niyabetî çek û teqemeniyan dikire"**



Obama: **"Tramp nikare bibe serkomar "**



Mêrkil: **"Heya ku Îran, Îsra'îlê bi fermî nas neke, têkiliyan bi wan re nadanên".**

## Erebistanê alîkariyên xwe bo Lubanê ragirtin

**Kurdistanmeda: Berpirsekî Erbistanê ragehandiye ku Erebistana Se'ûdî seba helwesta Lubananê êdî naxwaze ku alîkariya arteşa Lubnanê bike.**

Li gora nûçegihaniyan, Erebistana Se'ûdî pêdeçûneke cidî li ser têkiliyên xwe digel Lubnaê de kiirn, û di vêd erheqê de hinek biruarên li gora berjewendiyên Erebistanê dan.

Biryara yekem ew e ku ewê alîkariyên xwe yên bo çekdarkirina arteşa Lubnanê ku bi qasî sê milyard Dolar pere hewce bû, wê bisekinînin.
Ya duyem ew e ku Erebistanê ew yek milyard Dolarê ku ku biryar bû bide hêzên navxweyî, niha şûnda nade wan.



Piştî ku Erebistanê alîkariyên xwe yên bi Lubnanê re dan sekinandin, "Se'id Herîrî" yê serokwezîrê berê yê Lubnanê ragehand ku, ez ji biryara Erebistana Si'ûdî derheq bi sekinandina alîkariyan, fam dikim.

Se'id Herîrî ku serokê rêkxistina "Mosteqbel" e, ragehand ku, bi wan siyasetên Ehmeqane ên ku hinek ji partî û alî û siyasetvanên Lubnanî, girtine pêşiy xwe, xincî zirargihandina ji berjewendiyên xelkê Lubnanê, tiştek din nahê çavnihêrîkirin.

Navbirî tekez kir ku, seba wan siyasetên ehmeqane ên derveyî sînorên Lubnanê, zirarmendê sereke, xelkê Lubnanê ye.
Herîrî careke din pêdagirî li ser vê gotina xwe kir ku, herkes li ser vê baweriyê be ku, Lubnan wê bibe herêmek ji herêmên Îranê, tûşî wehm û şaşîtiyê bûye.

## "Jeb Bush" di rikeberiyan de serkevtin bi dest nexist

**Kurdistanmedia: Rikeberiya di navbera berbijêran di Amerîkayê de berdewam dike, û "Jeb Bush" dev ji rikeberiyan berda, û Tramp û Kilîntonê serkevtin bi dest xistin.**

Li gora zanyariyan Tramp berbijêrê pêşeng ê Komarîxwazan bo hilbijartinên serkomariyê, di hilbijartinên destpêkê ên eyaleta Karolînaya Başûr de serkevtin bi dest xist. Herwisa Hêlarî Kilînton jî bi cudahiyeke kêm pêş "Birnî Sindirz" ket.
Serkevtina vê carê ya "Donald Tramp" bexteke zêde dide wî, da ku di dawiyê de ew bibe berbijêrê Komarîxwazan bo posta serkomariyê. Herçend ku hêşta riyeke dûr û dirêj bo serkevtina wî ya dawiyê maye, û navbirî bi tundî tê rexnekirin.



Komarîxwaz di 23'ê Şibatê de wê herin herêma "Niwada" û piştre jî wê di Tekzasê de propagendeyan ji xwe re bikin.

Di rikeberiya roja 20'ê Şibatê de Hêlarî karî bi bidestxistina %52 ji dengan, bi ser Sindirz de serkeve, ku %48 ji dengan bi dest xistibû.

## Erdoxan: Hekî Amrîka ji YPG'ê piştevaniyê bike, emê binkeya Încîrlikê dabixin

**Kurdistanmedia: Serokomarê Tirkiyê Receb Tayîb Erdoxan da zanîn ku, eger Amerîka Yekîneyên Parastina Gel di Sûriyê de weke terorîst nas neke, û bi berdewamî piştevaniya wan bike, dibe ku Enqere binkeya hewayî a "Încirlikê" li ser wan dabixe, û herwiha Tirkiye Yekîneyên Prastina Gel berpirsê êrîşa terorîstî a di Enqerê de dizane.**

Tê zanîn ku di vê teqîna terorîstî de, 28 kes hatine kuştin.Herwiha Erdoxan di têkiliyeke telefonî bi serokomarê Amerîkayê Barak Obama re ew hişyar kir ku piştevaniya Amerîkayê ji Yekîneyên Parastina Gel di Sûryê de wê bibe sebeb ku binkeya Încirlîkê li ser leşkerên Amerîkayê were daxistin.

Li gor nûçeyên ku belav bûne Obama di berdewamiya vê têkiliya telefonî de gotiye ku eva heqê Tirkiyê ye, ku parastina xwe bike, û divê Yekîneyên Parastina Gel jî mifahê ji bûyerên ku rû didin wernegire û herêman nexînin bin kontirola xwe de.

Tirkiye dibêje ku pirsgirêka me tenê bi PKK'ê re ye, ji ber ku PKK tenê ji bona berjewendiyên xwe çek rakiriye, û pêwendiya wê bi Kurdan re nîne, û nikare nûneratiya kurdan bike, û li gorî Tirkiyê Yekîneyên Parastina Gel li Sûryê jî perçeyek ji PKK ê ye.
Lê ev partiya dibêje ku Tirkiye bi hêceta vê teqînê dixweze ku Kurdên daxwaza serbixweyiyê dikin serkut bike.



**Şemam Fetahzade:**

# ‘Çiqas birînek bi jan e dema mirov ji dîtina kes û karên xwe bêpar be’



**H. Arif Vêlzî**

çiqas bi jane dema kesekî mirov di bereberê mirnê de daxwaza dîtina xweşteviyeke xwe bike, lê dil reqên bi kerb û kîn rê nedin, berî mirin ku hêviya wî bi cih bê. Dema babê min pir kal û nesax bû û ji rojên dawiya jiyana xwe nêzî dibû, daxwaza min dikir, lê parêzer û leşkirên tarîtî û nezaniyê rê nedan min ku ez babê xwe bibînim û li hembêz bigirim û, bêjim babê min yê zehmetkêş oxir be. Birînek pir bi jane û heya roja mirina min jî wê hewal û hevrêya jiyana min be.

Şemam Fetahzade jî yek ji wan şêre jinên Kurde ku birîna weha bi jan û êş, her roj liser cesteyê xwe hest pê dike û jibîr nake.
Şemam Fetahzade keça Ferecullah sala 1960’î (13.07.1339) li gundê “Wesê” ya ser bi bajarê Sine hatiye dinê.

Şemam Fetahzade derheq bi nasyariya xwe tevî Hizba Demokrat dibêje:“Dema Hizba Demokrta Kurdistana Îranê xebata xwe ya eşkere ragehand û binke û baregehên xwe li seranserî Kurdistanê ava kirin, min bo cara yekemîn PDKÎ nas kir û bûm evîndarê pêşmerge, piştî heyamekî Yûsifê hevjînê min bûye rêvîngê rêbaza Demokratê û bi wî awayî em hatina nava şoreşa rizgariya Kurdistanê û tevlî Hizba Demokrata



Kurdistana Îranê bûn”.
Şemam Fetahzade herweha derheq jiyana xwe ya hevpar dibêje ku:“Temenê min 12 salî bû ku min, jiyana hevpar tevî “Yûsif Ken’anî” naskirî bi Mam Yusif ava kir û berhema jiyana me 3 kur û du keç in. Keça min ya mezin bi navê “Asiya” niha li welatê Norwêjî dimîne û zarokê min ê din “Welî” yê kurdê min e ku niha li welatê Amerîkayê akincî ye. Zaroka min yê din keça min “Sûsin” e ku niha li Hewlêra serbajarê Herêma Kurdistanê dimîne û du kurên min ên din bi navên “Wirya” û “Arya” hêj bal min in û li kempa Azadî ya Hizba Demokrata Kurdistanê dimînin”.



Şemam Fetahzade piştî nêzî bi çar dehk jiyana pir ji jan û zehmetî û hevdem seranser ji şanazî ya di nava Hizba Demokrat de, çavnihêriya xwe ji Hizba Demokrat weha tîne ziman:“Take dawxaz û çavnihêriya min ji Hizba Demokrata Kurdistanê ku piraniya jiyana xwe min bi Şanazî ve di nava refên wê de derbaz kiriye ev e ku, Hizba Demokrat biser keve, vegere Kurdistanê, Kurdistanê îdare bike û em jî bi serbilindî careke din herin nava xizm û kes û karên xwe û ev emrê mayî di nava kesên xwe û axa xwe de derbaz bikin”.

Şemam Fetahzade roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: “Yek ji bîreweriyên herî xweş ên jiyana min, rojek bû ku Dr.Şerefkendî hat û serdana me kir, bo cara yekemîn bû ku min rêberê xwe ji nêzîk ve dît û ez pir dilşa û kêfxweş bûm, ew roja han tu carî ji bîra min naçe”.

Şemam Fetahzade herweha di hember de roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: “Yek ji bîreweriyên neweş ên jiyana min, roja şehîdketna Dr.Qasimlo bû, dema nûçeya şehîdketina Qasimlo yê serkirde belav bû, az û Hizba Demokrat û Kurdistana Rojhilat û hemû ev kesên ku Qasimlo nas dikirin dilgiran bûn, birastî ez pir aciz bûm û niha jî ji bîra min naçe. Heyamek din jî di jiyana min de heye ku min têde pir êş û elem dîtin, ew jî dema nesaxiya babê min bû, jiber ku babê min di bereberê mirinê de bû û hem min hez dikir ku berî mirinê babê xwe bibînim û, hem jî babê min dixwest berî mirinê careke din min bibîne, lê mixabin pasdarên ser bi rejîma xumeynî rê nedan min ku ez herîm babê xwe bibînin. Ez wî çaxî pir aciz bûm û eva jî dewranek pir nexweş a jiyana min e”.



## Rojê 10 kes di Îranê de bi şewitînê canê xwe ji dest didin

**Ajansa Kurdpa: Di Îranê de Rojê 10 kes bi şewitînê canê xwe ji dest didin, ku piraniya wan ji malbatên desteng in.**

Mihemed Cewad fatimî berpirsê nawenda lêkolîna şewitînê di zankoya zanistên pizişkî de ragehand: Her roj 10 kes di Îranê de bi şewitînê canê xwe ji dest didin, û rêjeya şewitîna wan di navbera 10 -15 hemberî navgîna cîhanê ye. Navbirî şewitîna wan kesan di Îranê de girê da bi pirsa destengiyê û got ku piraniya wan hejar in.

Mihemed Cewad fatimî berpirsê nawenda lêkolîna şewitînê di zankoya zanistên pizişkî de di doma gotinên xwe de ragehand: Di heyama 40 salan de tenê nexweşxaneye jib o şewitînan di Tehranê de hatiye avakirin, û heya niha jî tu nexweşxaneyeke din div î bajarî de bi şewitînan nehatiye avakirin, û ew nexweşxane jî kevn e û nehatiye nûjen kirin.



## Îran di rîzbenda 50 welatên nûger de nîne




**Ajansa Kurdpa: Welatê Îranê li nav 50 welatên nûger (afirîner, nûawer) ên cîhanê ya sala 2015'an de, tu cihek tuneye.**

Li gora rapora "Bilombêrg" welatê Îranê di nava 50 welatên cîhanê de li warê afirandin û nûgeriyê de, tu pileyek tuneye, û sala borî jî di nav 50 welatan de, pileya dawiyê hebû.

Ew rîzbendî li gora 6 pîvanan hatiye encamdayîn, ku îsal navê Îranê tê d enîne, û welatên wekî "Kureya Başûr, Japon û Almanya" jî pileya yekem heya sêyem hene.

Ew şeş pîvan ew in: "Lêkolîn û geşekirin, Berhemhînan, şîrketên teknolojî ya pêşkevtî, perwerde, lêkoler û afirandinan". Welatê Îranê bi sedema girêdayîbûna bi petrolê, û bidestvegirtina hemû biyavên aboriyê di vî welatî de ji aliyê Spaha Pasdaran, biyavê nûgeriyê û berhemanînê gellek lawaz e. Herwisa nebûna birêvewberiyeke hejî di warê pîşe û berhemê di Îranê de, bi xwe zirareke cubrannekirî li aboriya wî welatî dide, û ew yek jî dibe sedema vê ku Îran di pilebendiyên aborî a cîhanî de, tu pêgeheke wê tunebe.

## Çavnihêrê vegeşîna aboriyê piştî "Bercamê" nebin

**Ajansa Kurdpa: Cihgirê Wezîrê Karê Derve ê Komara Îslamî ragehand: "Nabe em çaverêyê vegeşîna aboriya welat piştî "Bercamê" bin".**

**Rojnameya "Himayet" raporek li ser axivtinên "Ebas Îraqçî" cihgirê Wezîrê Karê Derve ê Hikûmeta Îslamî ya Îranê belav kir ku tê de hatiye: "Di rêûresma rêzgirtina ji Îraqçî de, navbirî bas ji hinek ji xweşxeyaliyên piştî became kiriye.**

Îraqçî ragehandiye: " Nabe ku em çaverê bin ku piştî wajûkirina became aboriya me geşe bike, p hekî me jêve be ku piştî bercame hemû deriyên aboriyê li ser Îranê têne vekirin, em şaş in, berevajî hewce ye ku em demeke zêde danên, da ku li cem kompaniya û bankên mezin baweriyê ava bikin, û wê demê hewl bidin di Îranê de sermayê bixin ger. Ew gotin piştî vê yekê belav dibin ku piştî wajûkirina lihevkirina navkî ya Îranm û Rojava, Hesen Rûhanî di gotûbêjeke televîzyonî de mizgîniya vê da xelkê, ku xwe ji bo geşekirina aboriyê bi awayekî serkevtî amade bikin, û di vê rasteriyê de berdewam rojname û ragehandin ên ser bi baskên hikûmetî banga baştirkirina rewşa şipirz ya aboriya Îranê piştî became dikin.

Rûhanî di beşeke din ji vê dîmaneya televîzyonî de ragehandiye ku: "Piştî wajûkirina became, hemû rojekê 10 heya 20 kompaniyayên mezin ji bo sermayedanînê rû li Îranê dikin!" û ew yek jî dibe sedema vejiyana aboriya welat.



## Şerê bandên nava deshilata rejîma Îslamî a Îranê de berdewam e

**Kurdistanamedia: Hinek ji binajoxwazên Meclisa Dehem, derheq bi hebûna "Gendelî" û "Pereyên Reş" di pêvajoya hilbijartinan de, hişdarî dan.**




Di civîna şarezayên mijarên aborî ên taybet bi binajoxwazan li Tehranê, wate civîna "Bijîw û pêşkevtin"ê de, serbarê xistine berbas a hebûna 950 hizar milyard Tûmen "Nexdînêgî" û duhember bûna vê diyardeyê di aboriya welat de di heyamê 2 salên derbazbûyî de, derheq bi hebûna "Gendelî" û "Pereyên Reş" di nava lîsteya pirûpagendeyan de, hişdarî hate dan. Lotfulla Firûzende cîgirê bernamerêjiya dewela dehem di vê civînê de eşkere kir ku, di pêvajoya hilbijartinan de hinek kesên ku berjewendiyên wan bi tewahî tevî gendeliyê têkil in, piştevaniyê didin hinek lîsteyan û bi pereyên reş hewla ji rê derxistina pêvajoya hilbijartinan didin.

Navbirî di beşek din a gotinên xwe de ragehand ku, hinek kes bi meremên siyasî di wan hilbijartinan de pişikdariyê dikin û rasterast û nerasteras xizmetê bi dujminan dikin, jiber ku tu baweriyek bi "Îstikbara Cîhanî" nînin, û di hewla cîbicîkirina pilanên aborî ên Rojavayiyan de ne. Şirovekarên siyasî gotinên han bi beşek ji şerê bandên nava deshilata Komara Îslamî didin zanîn ku di pêxema gerimkirina bazara hilbijartinan têne encamdan.

## Li Mehabadê festîvala xwarinên Kurdî hate lidarxistin

**Li bajarê Mehabdê, festîvala xwarinên Kurdî û herêmî hat lidarxistin. Di festîvalê de 110 cure xwarin hatin nîşandan.**



Li gorî malpera Haje.ir, ku nûçeyên devera Mukriyanê ya Rojhilatê Kurdistanê belav dike, çend roj berê li Mehabadê nehemîn festîvala xwarinên kurdî hat lidarxistin.

Li gorî malperê, di wê festîvalê de ku ji aliyê Şaredarî û Encumena Bajêr a Mehabadê ve hatibû organîzekirin, 110 cure xwarin hatin nîşandan û di dawiyê de jî xwarina herî baş hat xelatkirin.

Piştî ku festîval xilas bû, koma hunerî ya Sablaxê, govend û dîlana kurdî pêşkêş kir. **Rûdaw**

## Heşt derhînerên fîlma "Jiyan li sere sînor" negihîştin festîvala Berlînê



**Ajansa Kurdpa: Heşt derhînerên fîlma "jiyan li ser sînor" nikarin ku beşdariyê di fetsîvala Berlînê de bikin.**

Li gora nûçeya gihîştî Ajansa Nûçegihaniya Kurdpa, fîlma demomentarî ya "Jiyan li ser sînor" ji derhînan heşt zarokan li bajarên Şingal û Kobanê û ji berhemanîna Behmen Qubadî roja 18'ê Şibatê li beşa "Şanoya taybetî ya mafûrê Sûçor" li 66.mîn gera festival navdewletî ya fîlma Berlînê li Almanyayê diçe ser perdeya sînemayan û konferanseke rojnamevanî a navdewletî derheq vê fîlmê ji aliyê festival Berlînê vet ê organîzekirin.
Bi vê boneyê ve ew zarok hatine gazîkirin da ku amade bin di dema nîşandana fîlma wan de, lê bi sedema nebûna pasportê nekarî herin festival.

Jiber ku ew film wêneyên jiyan û rewşa zarokan nîşan dide, lewra ji aliyê NY ve di festîvalên navdewletî de û di nawendên hunerî û kom û kombûnên diplomatic ên cîhanê de tê piştevanîkirin.

ew berhema sînemayî ji heşt beşan pêk hatiye, û heşt zarokên awarebûyî ên şerê Kobanê û Şingalê tê de rol dilîzin, û bas ji çîroka çekdarên DAÎŞ û çawaniya akincîbûna wan di kempan de dikin.

Hezkirina Şingalê, geriyan li pey heqîqetê, nan û mast, fîlma me ya baş e, çavên bavê min, Esman û Derman, di pêvajoya niştiman de, û geriyana li çiyastanan, navê wê heft beşên fîlma "jiyan li ser sînor" e.

## Rambo Oskara 2016-an boykot dike

**Aktorê sînemayê yê navdarê cîhanê Sylvester Stallone ku wek John Rambo tê naskirin, ragihand, ku ew hizir ji boykotkirina merasîma Oskar a 2016ê dike.**

Sylvester Stallone yan jî Rambo ragihandiye, ew renge beşdar di merasîma pêşkêşkirina xelatan a Oskar 2016ê de neke.

Rambo sedema wê yekî jî wiha daye xuyakirin, ji ber ku ew hest bi regezperestî û nijadperestiyê di nav namzedên Oskar a 2016ê de dike, wî hizir li baykotkirina merasîmê kiriye.

Rambo bo wergirtina baştirîn xelatê aktorê alîkar namzedê Oskar a îsal e.

Ew daxuyaniya Rambo piştî wê yekê tê, ku hejmarek aktorên cîhanî bi taybetî jî kesên reşpîst biryar dane merasîma Oskar a îsal boykot bikin. Aktorên reşpîst sedema biryara xwe bo baykotkirina Oskar 2016ê bow ê yekê vegerandine, ku di wan du salên dawiyê de ti sînemakarekî reşîpîst bo xelatên sereke yên Oskarê nehatine namzedkirin.



Merasîma dabeşkirina xelatên Oskar a 2016ê dê 2i 28ê vê mehê de li bajarê Los Angelos a Amerîkayê birêve biçe.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Kinc di derheqa mirovekî de tu zanebûnê nade.
**Yriarte**

Li yên ku xwe pir dixemilînin binihêrin, hemû jî dixwazin xwe veşêrin.
**Aristo**

Dibe ku rexne ne tiştekî spehî be, lê pêwîst e. Ew jî mîna êşê ye, nexweşiya giyanê mirov bi mirov dide zanîn.
**Churchill**

Ji berdêla ku wê ji helbesteke min ya nebaş re çepik lêbikevin, bila ji helbesta min ya baş re fîtik lê bikevin çêtir e.
**Victor Hugo**

Rexnegir ew kes in ku di hunermendî û edebiyatê de bi ser neketine.
**Disraeli**

Hînbûyina bêî fikir, windakirina demê ye.
**Confucius**

Bi tenê yên mirî û yên kêmaqil fikrên xwe naguherin.
**Lowell**

Fikrên ku di dilê nefsbiçûkan de dijîn, fikrên bilind in.
**Montaigne**

# Zimanê Kurdî



## Beşa 1. Dema lîstikê

### Veşartok



**Ristem:** Hevalno, ka em veşartokê bilîzin?
**Mazlum:** Erê, em bilîzin.
**Canan:** Ez jî dilîzim.
**Ceylan:** Ez jî dê bilîzim.
**Ristem:** Baş e, pêşî dê kî ji me bibe pîra holikê?
**Mazlum:** Werin pîra holikê em bi "*bizdim-badim*"ê diyar bikin!

*Bizdim-Badim*
*Bizdim*
*Badim*
*Bizdim*
*Badim*

**Ceylan bû pîra holikê!!!**
**(Ceylanê berê xwe da dîwar, çavên xwe girtin û hevalên wê xwe veşartin)**

*-Ooooo*
*Êkê Mêkê*
*Qirika çûkê*
*Şah bilbilê*
*Textê çilê*
*Çil çîzanê*
*Ava rengê hezareyê*
*Gur gureyê*
*Bîst li teyê*
*Xwe veşêrin, va hatim we!*

103


Veşartok


Teytok


Darqîtik


Xar

## Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**1. Lempe/Çira-Momik-Fanos-Lox**
- Tilya tirî, xanî tijî/run kirî.
- Tiştekî min heye biçuk e, lê tijî odekê ye.
- Tiştekê min heye li ser refikê, dide defikê.
- Tijî çengekî, tijî xaniyekî.
- Xanima ser kursî, dixwe nanê bi tursî.
- Ser zêr e, aqil ker e.
- Behrek av, marek li nav, teyrek li hindav.
- Temet tiblekî, pir dikit odekî.
- Ez çume bi rê da, birkeka di rê da, marekê tê da, çûçkeka di devî da, ew mar bi wê avê dijit, ew çûçik bi marî dijit
- Heke kaniyê mar têda bit dê zêt, heke derket nazêt.

**2. Bivir/ Das**
- Temerê /Emerê leng, li çiyay kire deng. Melayê leng, li çiyay kire deng.
- Xalê min a xal a, dojminê kendal a.
- Qeşê bi lingekî, çu şerê gundekî.
- Qasimê qunxwar, çû şerê dar, dar anî xwar.

**3. Kil û kildan**
- Bîr ji çermî, dolik ji darî, av ji berî.

**4. Pare**
- Ji berî reqtire, ji şekirê şirîntir e.
Ji berî reqtire, ji ruha mirov şirîntir e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (272)

## Ji bo terora Selman Roşdî dîsan xelat hate diyarîkirin



**Kurdistanmedia: Pêşangeha ragehandinên dîcîtalî ya “Şoreşa Îslamî” bo terora Selman Roşdî xelateke 600 hezar Dolarî diyarî kir.**

Li gora nûçegihaniyan 43 nawend û ragehandinên giştî ku di vê pêşangehê de beşdar bûn, û bûdceya wan jî ji aliyê Spaha Pasdaran û Besîc û nawendên din ên hikûmetî ve tê berhev (dabîn) kirin, biryar dane ku xelatê bidin wî kesî, ku Selman Roşdî teror bike.
Di nav ragehnadinên giştî de, Nûçegihaniya Fars, Nûçegihaniya Besîc, û Nûçegihaniya Besîc Pors, biryar dane ku 230 miyon tûmenî bikêşin stûyê xwe.
Ew xelat bi boneya salroja derkirina hukmê kuştina Selman Roşdî ji aliyê Xomênî ve hatiye diyarîkirin.
Di sala 2012’an de jî, nûnerê Xamineyî di nawenda (binyata) 15’ê Xurdadê de, xelata kuştina Selman Roşdî zêde kiribû, û ew xelat bi vî awayî bibû 8 milyard Tûmen.
Selman Roşdî di sala 1989’an de, seba nivîsandina pirtûka “Ayatê Şiytanî”, fetwaya kuştina wî ji aliyê Xomênî ve hate derkirin, û Xamineyî jî piştre ragehand ku ew fetwa nahê guhertin.

## Obama wê serdana Kûbayê bike

**Kurdistanmedia: Piştî 88 salan wê serkomarê Amerîkayê serdana Kûbayê bike, û çend kesayetiyên Komarîxwaz li dijî vê serdanê ne.**

Li gora nûçegihaniyan, Obama serkomarê Amerîkayê biryar daye ku vê tilisma 88 salan ya neçûna serkomarên Amerîkayê bo Kûbayê bişkîne, û bi rayedarên Kûbayê re pêwendiyan danê.
Amerîkayê piştî şoreşa sosyalîstî ya li Kûbayê bi rêberiya Fîdel Kastro di destpêka dehka 60’î a Zayînî şûnda, pêwendiyên xwe yên aborî û bazergandî bi wî welatî re qut kirin, û tehrîmên giran bi ser kûbayê de sepandin.
Pêwendiyên di navbera wan her du welatan di dirêjahiya wan çend salan de gellek aloz bûn, lê di sala 2014’an de, serkomarê Amerîkayê û Ra’ul Kastro biryar dan ku bi hev re pêwendiyan danên.

Cara dawiyê ku yek ji serkomarên Amerîkayê serdana Kûbayê kiribû, di sala 1928’an




de bû. Di sala 2011’an de jî Cîmî Karter serdana Kûbayê kir, lê Cîmî Karter serkomarê berê yê Amerîkayê bû.

Di meha Gulana sala 2015’an de Amerîkayê navê Kûbayê ji rîzbenda welatên terorîstî derkir, û piştre balyozxaneyên Amerîkayê û Kûbayê di bajarên Hawana û Waşingtonê de dest bi kar bûn, û bi vî rengî pêwendiyên dîplomatîk di navbera wan de dest pê kirin.

Bi vî halî jî hinek ji Komarîxwazan di Amerîkayê de, seba rakirina hinek ji tehrîman ew kiryara obama rexne kirin. Di Amerîkayê de rakirina tehrîman li ser Kûbayê, bi tewahî di deshilata şexsê serkomar de nîne, û ew biryar dibe di kongrêsê de bê pejirandin.

Niha piraniya kongrêsê di destên Komrîxwazan de ye, lewra zehmet e ku di sala 2016’an de jî tehrîm bi tewahî li ser Kûbayê bêne rakirin.

## Beşdarî di hilbijartinên Meclisa Şêvra Îslamiya Îranê de, dengdan e bi serkut, hovîtî, û îdama hevwelatiyan, lewra dengnedan erkeke neteweyî û exlaqî ye







